Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 37
15'ê Apr 2006
Buha: 150 Tûmen

# agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Roja Şehîdên Kurdistanê

Demjmêr 9'ê sibêdeya roja pêncşem, 10'ê Xakelêweya 1385'an a Rojî(30.03.2006), li binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê, di rê û resmeke taybet de, rêz ji yad û bîranîna Roja Şehîdên Kurdistanê hate girtin.... R. 2



Ehmedînejad di civînekê de bi fermî ji raya giştî re ragehand:

# ÎRANÊ URANIYÛMA ZENGÎNKIRÎ BI DEST XIST



Serbarê vê yekê ku Konseya Ewlekariya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî, roja 29'ê Marsa 2006'an di daxuyaniyekê de ji dewleta Komara Îslamî ya Îranê xwest ku dest ji zengînkirina Uraniyûmê û xebat ji bo bidestxistian teknolojiya Etomî ber de û derehqî bernamên xwe yên Etomî bersiva pirsên IAEA'ê bide û wd..., Ehmedînejad, Serok Komarê Îranê roja sêşem, 11.04.2006'an di civînekê li bajarê Meşhedê bi awayekî fermî ragehand ku Îranê Uraniyûma zengînkirî bi dest xist û tevlî 8 hêzên mezin yên cîhanê ên Etomî bû.

Piraniya rayedar û serokên welatên cîhanê ev gava Komara Îslamî mehkûm û şermezar kirin û wekî biryareke şaş û berevajî pêvajoya çareserkirina dosya aloz ya Etomî a Îranê zanîn. Her wiha daxwaz ji Komara Îslamî kirin ku dest ji xebat û biryara xwe ya nû ber din. Dosya Etomî ya Îranê niha ji bo nirxandinê di Konseya Ewlekariya RNY de ye û tevî vê biryara nû ya Komara Îslamî, dosya rojeveke aloztir ji berê bi xwe ve digire.



**Hunermendê Dengxweş Diyar Dêrsîmî Di Hevpeyvîneke Taybet Bi Agirî Re:**

## "DIVÊT LI BAŞÛRÊ KURDISTANÊ DI BIN HIMAYETA DEWLETÊ YAN DESTHILATA HERÊMÎ DE KONSERWATWAREK BIHÊ ÇÊKIRIN KU MIROV ÇAWA DIKARE DERSÊ BIXWÎNE, BIKARE MUZÎKÊ JÎ BIXWÎNE."

Hevpeyvîn di rûpela 7-9'an de

### Daxuyaniya Deftera Siyasî Ya PDK Îranê Derheq Birêveçûna Heftemîn Civîna Komîteya Navendî



Komîteya Navendî ya PDK Îranê civîna xwe ya heftemîn lidarxist.... R. 2

### Peyama Rêzdar Rostem Cehangîrî, Endamê Komîteya Navendî Di Roja Şehîdên Kurdistanê De



Bila em hemû xelata şehîdan bi domandina rêya wan û sozdarman bi armancên wan bidin.... R. 3

### Derheq Xwenîşandanên Gelê Kurd Li Bakurê Kurdistanê



Em piştgîriyê ji xwenîşandana heqxwazane ya xelkê bajar û herêmên cur bi cur yên Kurdistana Bakûr dikin û li ser vê baweriyê ne ku pirsgirêka Kurd li Turkiyê û li hemû welatên herêmê de, dozeke haşalênekirî ye û hebûna wê heye û hewceye ji rêya demokratîk ve bihê çareser kirin. R. 4

### Demokrasî, Biha û Piratîka Wê Beşa 25



Di vê beşê de em dê teoriya ramana dadperweriya "Rawls" şirove bikin.... R. 5

### Kê Li Hember Jiyana Zarokan Di Îranê De Berpirsiyar E?



Li Îranê zarok jiyaneke dijwar diborînin. .. R. 6

### DEMOKRASÎ



Sazûmana ku gel xwe bi vîna xwe û bi xwe pêk tîne û bi rê ve dibe wekî demokrasiyê tê binavkirin. R. 10

**Daxuyaniya Deftera Siyasî Ya PDK Îranê**

# Derheq Birêveçûna Heftemîn Civîna Komîteya Navendî

Em radigehînin, Komîteya Navendî ya PDK Îranê, hilbijartiya kongra sêzdehem, demjmêr 9:30 sibêdeya roja sêşem, 8'ê Xakelêweya 1385'an ya Rojî (28.03.2006), civîna heftemîn ya xwe bi beşdariya endamên Eslî, Cîgir û Ravêjkar yên Komîteya Navendî pêk anî û piştî 2 rojan karê berdevam, demjmêr 20'ê êvar a roja çarşem 29.03.2006'an, dawî bi kar û xebatên xwe anî.

Civîn bi rawestandina deqeyek bêdengî bo rêzgirtin û bilind ragirtina bîranîna şehîdan dest pê kir. Di destpêkê de destûra kar û bernama civînê kete ber raya beşdaran û hate pejirandin. Piştre hevalê rêzdar û xebatkar Kekê Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê, raporeke siyasî ji aliyê Deftera Siyasî ve pêşkêşî civînê kir. Di vê raporê de ku pirsên siyasî yên têkildar bi Îranê û Kurdistanê li xwe girtibû, ji hêla pişikdarên civînê ve kete ber bas û nîqaşê û hate pesend kirin. Di vê raporê de pêvajoya bûyerên Îranê nemaze li pey diyarîkirina Mehmûd Ehmedînejad wekî Serok Komarê rejîmê û doza yekdest kirina dezgehên birêveber yên rejîmê û binpêkirina zaf ya maf û azadiyên xelkê Îranê û destpêkirina pêleke din ji tepeserkirin, kuştin û girtina azadîxwazan û neraziyan, bi hûrî qala wan hatibû kirin. Her di vê derbarê de ev rastiya han jî ber çavan hatibû xistin ku serbarê encamdana tund û tûjiya rejîmê û sazî û dezgehên tepeserkar yên wê, gelên Îranê jî eşkeretir û netirsanetir meş û livînên xwe yên nerazîbûnê domandin û bi awayekî micidtir ketine dijberî tevî rejîmê û zext û îşkence, girtin û kuştina azadîxwazan gavên wan sist nekirin.

Di wê rapora siyasî de, berçavtir bûna pirsgirêka Etomî a Komara Îslamî bi civaka cîhanî bi giştî û nemaze Rojavayan re, bi awayekî hûr û berfireh ketibû ber bas û qala egerên têkildar yên vê dozê hatibû kirin.

Di vê derheqê de û bi spartina dosya Etomî ya rejîmê ji Konseya Ewlekariya Rêxistina Neteweyên Yekbûyî re, civînê berpirsiyariya her cure dijkiryareke cîhanî bi dijî rejîma Komara Îslamî ya Îranê ku encama wê dawa xelkê weletê me bigire, xiste stûyê rejîmê ku bi kakileke têkderane û riftareke dîktatorane yê bûye tirseke mezin û micid bo ser tenehî û ewlekariya herêmê û heta cîhanê.

Di pareke din ya rapora Deftera Siyasî de îşare bi rola Kongreya Neteweyên Îrana Federal hatibû kirin. Di vê derbarê de civînê bihêztirkirin û berfirehkirina vê kongreyê bi hewce zanî û li ser vê baweriyê bû ku heke piştgîrî û piştevanî ji Kongireya Neteweyên Îrana Federal bihê kirin, dikare wekî altirnatîveke jêhatî ji bo



rejîmê xwe derbixe.

Civînê di pêwendî tevî vê parê ji rapora Deftera Siyasî de ku derheq rêxistinên siyasî yên Îranê ve hebû, gotûbêj tevî gişt wan hêzane bi kareke hewce û bisûd hesiband, bona vê çendê ku bikarin pitir li hev nêzîk bibin, lê pileya alîkariya PDK Îranê tevî her yek ji wan hêzane bi çawaniya baweriya wan bi demokrasî û dabînbûna mafên neteweyî yên neteweyên Îranê û mafên neteweyî yên Kurd di Îranê de girêda.

Di parek din ya rapora Deftera Siyasî ji bo civînê de, hewlên partiyê ji bo pêkanîna enî yan havbendiyekê di navbera hêzên siyasî yên Kurdistana Îranê û encama wan cehdane bi hûrî ketibû ber bas. Di vê derheqê de civînê cehd û hewlên Deftera Siyasî pejirand(erê kir) û careke din li ser van cehd û xebatane tekez kir û hewcehiya alîkariya pitir di navbera hêzên siyasî yên Kurdistana Îranê de destnîşan kir.

Di beşeke din ya rapora Deftera siyasî de îşare bi Civata Berevanî ji Girtiyên Siyasî û şermezarkirina binpêkirina mafê mirovan di Kurdistanê de hatibû kirin. Civînê ev kare bi kareke bicî û pêwîst danî û li ser hawcehiya pêkhatina vê tekez kir. Di rapora Deftera Siyasî ji bo civîna heftem de, têkiliyên Partiya Demokrat tevî hêzên siyasî yên Kurdistanê li hemû parçeyên Kurdistanê ketibû ber basê. Di vê derheqê de civînê tevî pejirandina(erê kirina) hewlên Deftera Siyasî, li ser hewcehiya xurtkirina wan peywendiyan tekez kir.

Di beşeke din ji karê civînê de, bi berçavgirtina şîroveya siyasî ya civînê, erk û wezîfên partiyê di vê qonaxê de hatine destnîşan kirin û hewcehiya xebata pitir û çelengtirbûna partiyê di hemû waran, nemaze di warên karê rêxistin, teşkîlat, dîplomasî, ragihandin û perwerdehî û elimandinê de tekez hate kirin. Civînê di vê derbarê de sipartin da Deftera Siyasî ku ji bo encama wezîfeyan û çelengtirbûn di van warane de tevî organên têkildar bernama dem diyarîkirî dabirêje û encamên wan cehd û hewlane bişopîne.

Civînê di para dawîn ya karê xwe de, basa wan nivîsar û gotarane kir ku bi navê dilxwaz li ser malperan hatine danîn û di wan de derew û çewtî hember bi partiyê û rêberiya wê hatine kirin. Beşdarên civînê bi tevahiya dengan ev kare bi tundî mehkûm û şermezar kirin û bi kiryar û kirinek hesiband ku di xizmeta siyaset û kompiloyên dujminên tevgera Kurd û PDK Îranê de ye.

Civînê piştî encamdana bername û destûra kar, demjimêr 20'ê êvariya roja çarşem, 19.03.2006'an dawî bi karên xwe anî.

**Polîtbîroya Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**30.03.2006**
**10.01.1385**

## Di Rê Û Resmeke Taybetî De Rêz Ji Bîranîna Roja Şehîdên Kurdistanê Hate Girtin

Demjmêr 9'ê sibêdeya roja pêncşem, 10'ê Xakelêweya 1385'an a Rojî(30.03.2006), li binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê, di rê û resmeke taybet de, rêz ji yad û bîranîna Roja Şehîdên Kurdistanê hate girtin. Îsal jî rê û resmek xasmanî bo rêzgirtin ji şehîdên Kurdistanê û bibîranîna trajidiya lidarvekirina Qazî Mihemed, Serok Komarê Kurdistanê û hevalên wî li Mehabadê, bi pişikdariya endamên rêberî, mêvan û hejmarek zaf ji Kadro û Pêşmergeyên partiyê û malbatên serbilind yên şehîdan pêk hat.

Rê û resm bi danîna tace gulan li ser mezarên şehîdan û xwendina çend parçe sirûdan dest pê kir. Piştre pişikdar di salona giştî a rê û resmê de amade bûn û programên vê beşê jî bi sirûda **Ey Şehîdan** û deqeyek bêdengî bo rêzgirtin ji canê paqij yê şehîdan dest pê bû. Paşan peyama Komîsyona Civakî ya Partiyê



di vê derheqê de ji aliyê birêz Rostem Cehangîrî, endamê Komîteya Navendî û Berpirsyarê Komîsyona Civakî ve hate pêşkêş kirin.

Di doma rê û resma 10'ê Xakelêwê de Peyama PSK Turkiyê ji aliyê birêz Mesûd Tek, Sekreterê Giştî yê PSK ve hate pêşkêş kirin.

Bernameyên din yên rê û resmê pêkhatibûn ji:

- Helbesta **Bo te ey Pêşewa**, ji aliyê Helbestvan Siware Qeladizeyî
- Pexşana **we sond didim**, ji aliyê Mamosta Bêbeş
- Peyama YXDÎ, ji aliyê Rambod Lutfpûrî
- Helbesta **Berze nav**, ji aliyê Ehmed Qadirî
- Pexşana **Şehîd**, bi Kurmanciya Jorîn, ji aliyê Meryem Hacîpûr
- Pexşanek ji aliyê Efrasiyab Giramî
- Sirûda "**Ev Şehîdane"** ji aliyê Koma Hunerî ya partiyê

Hêjayî gotinê ye ku pişikdarên rê û resmê piştî doma bernameyan, seredana pêşangeha wêneyên şehîdên PDK Îranê kirin.

# Deqa Peyama Rêzdar Rostem Cehangîrî, Endamê Komîteya Navendî Û Berpirsiyarê Komîsyona Civakî Ya PDK Îranê Di Roja Şehîdên Kurdistanê De



**Birêz Rostem Cehangîrî:**

**“Bila em hemû xelata şehîdan bi domandina rêya wan û sozdarman bi armancên wan bidin, divêt ew rêya ku wan nîşanî me daye, hetanî gihîştin bi azadiyê û mafên neteweyî bimeşînin û bi vî awayî hem ruha şehîdan şa bikin û hem di pêşerojê de em neçar û mecbûr nebin ji vê çenda niha şehîdan zêdetir bidin”**

**Hevwelatî yên birêz!**
**Xelkê xebatkar yê Kurdistanê!**

Îro 10’ê Xakelêwê Roja Şehîdên serbilind yên Kurdistanê ye. Bi vê hincetê ve em silavan dişînin bo canê paqij yê gişt şehîdên rêya azadiyê û bidestveanîna mafên neteweyî yên Kurd û li hember xwegorîkirin û canbextkirina şehîdan de serê rêz û emegdariyê ditewînin. Di heman demê de em peymana sozdariyê bo armanc û baweriyên wan nû dikin û soz û ehdê didin ku rêvîngê berdewam û mandînenas yê bidestveanîna hêvî û xweziyên wan bibin.

**Xortên netirs û biwêr yên neteweya Kurd!**

Şefeqa roja 10’ê Xakelêweya sala 1326 (1947)’an rejîma Mihemed Riza Şah, rêberê PDK Îranê û Serok Komarê yekem yê Komara Kurdistanê Pêşewa Qazî Mihemed û Ebulqasim Sedrê Qazî û Mihemed Husên Xanê Seyfê Qazî, bira û pismamê Pêşewayê nemir nêzîk bi sê mehan piştî canemergkirina Komara Kurdistanê û li pey hukimdan di dadgeheke sembolîk de li qada Çarçira ya Mehabadê, li wî cihî ku Komara Kurdistanê hate ragehandin, hatine lidarvekirin. Termê bê can yê wan şehîdane her wê rojê li ser milê xelkê sozdar û emegnas yê bajarê Mehabadê, di rewşeke tejî kul û xem û kovan de bi axa paqij û pîroz ya Kurdistanê hate teslîm kirin û mezarê wan bû ziyaretgeha xortên neteweya Kurd.

Rejîma Mihemed Riza Şah bi ji nav birina komarê û îdama Pêşewayê Kurd di wê xeyalê de bû ku xebata azadîxwazane ya xortên neteweya Kurd ji bo hertim tepeser dike û agirê şoreşa Kurd dê bitemirîne û tu Kurdek li xwe de nabîne ku domkerê rêya şehîdan be. Lê paşan eşkere bû ku ew xeyale çiqas negihîştî ye û ev cure bîrkirine çiqas savîlkane ye. Ji ber ku her wê demê Pêşewa Qazî Mihemed di demên dawîn yên jiyanê de ji kirêgirtî û mirovkujên rejîma Şah re emir kir: **Hûn Qazî Mihemedekê dikujin, lê di pêşerojê de her ciwanekî Kurd dibe Qazî Mihemedek**. Pêvajoya bûyeran û domandina xebat û berxwedaniya xelkê Kurdistanê gotina Pêşewayê nemir rast derxist û pûçî û bêbingehbûna nêrîn û dîtinên çewt û şaş yên rejîma Mihemed Riza Şah bi tevahî derew derxist.

Heke em mêzeyî pêvajoya bi nav dadgehî kirina Pêşewa bikin û balê bikişînin ser gotin û berevanîkirinên Pêşewa, em dibînin ku çawa mezinahî û çavnetirsiya Pêşewa bû bi wane û xortên neteweya Kurd jê hîn bûn û herdem bas dikin.

**Xortên mafxwaza yên Kurd!**

Berdewambûna xelkê azadîxwaz yê Îranê di xebat dijî dîktatorî û serberedayiyê û micidbûna xelkê Kurdistanê di domandina xebatê û berxwedaniyê, aqibet li pey şoreşa gelên Îranê di sala 1357 (1979)’an de, tomara emrê rejîma paşayetiyê û hikûmeta Mihemed Riza Şah ji holê hate rakirin û di şûn eşkerebûna tekoşîna PDK Îranê di 10’ê Xakelêweya sala 1358 (1979)’an, îro yanî 10’ê Xakelêwê wekî Roja Şehîdên Kurdistanê li nav kir. Heya em di vê rojê de tevî bibîranîna serwerê şehîdan Pêşewa Qazî Mihemed, bi awayekî giştî rêz û rûmetê ji bîranîn û fîdakarî û xwegorîkirina tim şehîdên Kurdistanê bigirin. Ji wê demê şûn de hetanî niha hemû salekê civatên xelkê Kurdistanê serbarê hebûna givaş û zexta rejîmê, di roja 10’ê Xakelêwê bi çûn bo ser mezarê şehîdan, bi pêkanîna civînan, bi seredan ji malbatên şehîdan û birêvebirina rê û resma taybetî, şehîdên serbilind û serwer, bîr tînin û peyama sozdariyê bi armancên wan re tevî wan nû dikin.

Bi serkevtina şoreşa gelên Îranê, xortên gelê Kurd li Kurdistana Îranê hêvîdar bûn dawî bi kul û kovanên wan bihê, zulma neteweyî, siyasî û aborî li ser wan nemîne û dergehê azadî û gihîştin bi mafê neteweyî ber bi rûyê wan vebe. Lê mixabin ne tenê ew hêvî bicî nehat, belkî ji aliyê Komara Îslamî ve zulm û zordarî li ser Kurdan pitir û aliyên cur bi curtir jî bi xwe ve girt. Fitwaya cîhadê dijî xelkê azadîxwaz yê Kurdistanê ji aliyê Xomeynî ve hate ragehandin, Kurdistan hate dorpêçkirin, hate mîlîtarîze kirin û kuştina xortên gelê Kurd bo hêzên tartî û paşverûyiyê hate helal kirin. Bi dehan hezar xortên Kurd hatine şehîd kirin. Birîna teror û şehîdkirina mamostayê demokrasiyê Dr. Ebdulrehman Qasimlo, Sekreterê Giştî yê PDK Îranê û piştre kul û birîna terorkirina Dr. Sadiq Şerefkendî cîgirê jêhatî yê Dr. Qasimlo û Sekreterê Giştî yê PDK Îranê jî bi destê terorîstên Komara Îslamî ya Îranê li rex birîna Simko bi destê Riza Şah û lidarvekirina Pêşewa Qazî Mihemed bi destê rejîma Mihemed Riza Şah ketine ser laş û cesteya gelê Kurd û tevgera wê ya berheq.

Di pêvajoya kuştina xortên gelê Kurd bi destê Komara Îslamî ya Îranê de, gelek serok û serdarên din yên Kurd bi destê terorîstên Komara Îslamî yan di pêvajoya xebat û berxwedanî bi dijî vê rejîma dîktator û serberedayî de jiyana wan jê hate standin û bi xwîna sor ya wan belgeha rewayî û berheq bûna xebata gelê Kurd û mikûmbûna xortên wî gelî li xebatê heya gihîştin bi azadî û mafê neteweyî mohr kir.

Di vê boneyê de careke din jî em vê rastiyê dixin ber çavan ku ji bo Kurdan, şehîdbûn ne armanc e, lê di rêya gihîştin bi armanc, azadî û mafê netewî de, em ji şehîdbûnê û şehîddayînê natirsin. Ji ber ku me bawerî bi gotina navdar ya Dr. Qasimloyê nemir heye ku dibêje: **Gelek ku azadiyê bixwaze, divêt ku bihaya wê azadiyê jî bide.**

Mixabin bihadana wê azadiyê û gihîştin bi mafan jî giran û dijwar e û ew jî xwîna xortên vî gelî ye. Ew bihaye wê demê li ser gelê Kurd bi girantir diweste ku em dibînin di Kurdistanê de kêm malbat hene ku şehîdek yan heta çend şehîd di rêya azadiyê de nedabe, yan bihostek kêm ji axa Kurdistanê heye ku termê şehîdek rêya azadiyê û bidestveanîna mafê netewî li hembêz negirtibe.

Di rastî da renge gelek nebin ew netewe û gelên ku di rêya azadiyê û gihîştin bi mafan de bi qasê neteweya Kurd şehîd hebe, yan xeateke wiha dûr û dirêj domandibe û niha jî heyameke din hetanî serkevtinê li ber be.

Di boneya 10’ê Xakelêweya îsal de, di pêncî û nehemîn salvegera lidarvekirin û şehîdkirina Pêşewayê navdar yê Kurd Qazî Mihemedê nemir de û di Roja Şehîdên Kurdistanê de, em careke din sozdariya xwe bi armancên şehîdan dubare dikin û peyama nerawestiyan heta bidestveanîna hêviyên wan pê re nû dikin, her wekî wan peyamana sozdariya xwe bi Kurd û bi armancên Kurdan bi xwegorîkirin û gorîkirina jiyanê di rêya serkevtinê de bicih anî û taca serfiraziyê li ser serê xwe danîn.

**“Pêy navê bo Şehîdî weten şîwen û girîn Namirin ewaney, wa le dilî mîleta ejîn”**

Di dawiyê de em careke din qala gotineke bihagiran ya mamosta û rêberê xwe dikin ku gotiye: **Xelata herî baş ji bo şehîdan, domandina rêya wan e.**

Bila em hemû xelata şehîdan bi domandina rêya wan û sozdarman bi armancên wan bidin, divêt ew rêya ku wan nîşanî me daye, hetanî gihîştin bi azadiyê û mafên neteweyî bimeşînin û bi vî awayî hem ruha şehîdan şa bikin û hem di pêşerojê de em neçar û mecbûr nebin ji vê çenda niha şehîdan zêdetir bidin.

Silav ji canê paqij yê Pêşewa Qazî Mihemed, ser karwanê şehîdên Kurdistanê.

Silav ji canê paqij yê gişt şehîdên Kurdistanê .

Serbilindî ji bo malbatên hêja yên şehîdan.

Silav ji serkevtina armancên bilind yên şehîdan.

# Derheq Xwenîşandanên Gelê Kurd Li Bakurê Kurdistanê

**Sarîna**

Roja sêşem 28.03.2006’an di dema veşartina meytê 6 endamên Partiya Kedkarên Kurdistanê (PKK) li bajarê Ameda Bakûra Kurdistanê, xwenîşandaneke çend hezar kesî dijî siyaseta kurdkujane ya dewleta Turkiyê ser hilda ku bi sedema destêwerdana Polîsê wî welatî, tund û tûjiya du alî pêk hat û bû sedema kuştina 3 kesan û birîndarbûna 250 kesan tenê di roja yekem de û ziyan û xisareke zaf ya malî ji dem û dezgeh û navendên dewletî ket.

Ew xwenîşandana nerazîbûnê di roja şûn de jî dom kir û ji bo çend bajar û herêmên din yên Bakûrê Kurdistanê û Turkiyê teşene kir ku li gorî nûçeyên



***EM PİŞTGÎRİYÊ Jİ XWENÎŞANDANA HEQXWAZANE YA XELKÊ BAJAR Û HERÊMÊN CUR Bİ CUR YÊN KURDİSTANA BAKÛR DİKİN Û Lİ SER VÊ BAWERİYÊ NE KU PİRSGİRÊKA KURD Lİ TURKİYÊ Û Lİ HEMÛ WELATÊN HERÊMÊ DE, DOZEKE HAŞALÊNEKİRÎ YE Û HEBÛNA WÊ HEYE Û HEWCEYE Jİ RÊYA DEMOKRATÎK VE BİHÊ ÇARESER KİRİN.***

Ajansa Anadolî ya Turkiyê, di dema 8 rojan de, yanî di roja sêşem, 28.03.2006’an hetanî çarşem, 05.04.2006’an de, li bajarên Amed, Qoserî, Mardîn, Bîngol û Stenbolê de, 16 kes hatine kuştin û bêtirî 400 kesan birîndar û 800 kes jî hatine girtin û binçavkirin ku piraniya wan serbest hatine berdan. Her wiha zirar û ziyaneke berbiçav li bêtir ji 100 dem û dezgehên dewletî ket û agir li 12 otombêlên dewletî hatiye berdan. Li gorî nûçeyên CNN TURK’ê, hejmareke berbiçav ji Polîs, hêzên taybet ya dijî şoreş û serhildanê ji herêmên ne aram re hatiye şandin û sazî û dezgehên ewlekariyê yên Turkiyê tim cehd û hewla xwe bi kar anîne ku rewşê aram û tenah bikin û pêşgîriyê ji domkirina xwenîşandanan bikin.

Ewa ku di vê navberê de bala raya giştî ya welatên Yekîtiya Ewropayê û rêxistinên parêzvanên mafên mirovan bo aliyê xwe rakişandiye, termê 4 kes ji şehîdên serkuta xwenîşandanan bû ku tenê 4 heta 9 sal emir hebûn. **Osman Baydemîr** Şaredarê Amedê û kesayetiyê navdar yê Kurdistana Bakûr, roja înê, 31’ê Marsa 2006’an di civîneke çapemeniyê de ev pirse berbirûyê dewleta Turkiyê kiriye ku, gelo ew zarokên di xwenîşandanên bajarên Kurdan de hatine kuştin yan birîndar bûn, terorîst bûn?!

Bi awayekeî gelek matmayî **Receb Teyîb Erdoxan**, Serok Wezîrê Turkiyê di axavtinekê de, bersiva Şaredarê Amedê da û got: "Jin, zarok û her kesek di vê xwenîşandanê de beşdariyê bike, terorîst tê hesibandin û divêt bihê serkut û tepeserkirin."! Erdoxan her cure rûniştin û gotûbêjek tevî nûnerên Kurdên Bakûrê Kurdistanê û nemaze DTP (Partiya Komeleya Demokratîk) bi serokatiya **Ehmed Turk** bi vî merc û pîvanê girê da ku ew berî her tiştekê divêt PKK wekî terorîst binasînin û piştre jî ew ji bo çareserkirina pirsgirêka Kurd dê amade bibin gotûbêj û danûstandinan tevî wan encam bidin.

Dewleta niha ya Turkiyê ku piraniya endamên wê ji AKP yan Partiya Edalet û Pêşketinê ne ku xwe bi yekemîn partiya demokrat ya Îslamî dizane, pêk hatiye û bi dirûşma pêşdebirina demokrasî û ewlekariyê û cehd û xebat ji bo çareserkirina pirsgirêkên Turkiyê û nemaze doza Kurd hatiye ser kar. Vê partiyê li piraniya bajarên Kurdistana Bakûr de, cuda ji Amed û çend bajarên din nebe, piraniya dengan bidestve anî. Lê piştî hatine ser şolê, gelek zû da nîşandan ku li hember pirsgirêka Kurd ferq û cudahiyek tevî dewletên beriya xwe tune ye û bi taybetî xwenîşandanên rêzokî ên vê dawiyê yên gelê Kurd li Bakûrê Kurdistanê û helwesta AKP’ê ku heta gelaleya tundtirkirina qanûnên serkût û çewisandina Kurdan amade kir, ev rastiye bi tevahî derxiste holê.

Di vê navberê de encamdana hinek tund û tûjî û kiryarên dûr ji aqil û mentiqê ya kesên nenas li Stenbolê ku medyayên Turkiyê gotin ser bi PKK’ê bûn, ne tenê her alîkarî da Turkiyê hetanî bi desteke vekirîtir xwenîşandanên mafxwazane yên Kurdan qir bike, belkî dijkiryara hinek ji welatên wekî Amerîka û Yekîtiya Ewropayê di pey de bû û wek kirineke terorîstî hate şermezar kirin.

Televîzyonên Turkiyê berdewam dîmena şewitandina otuboseke şeredariya qada **Teqsîm** ya Stenbolê di şeva yekşem, 02.04.2006’an de nîşan didan ku 3 welatiyên Turk yên sivîl û bêguneh tê de bûn û her sê kesan jî jiyana xwe ji dest dan. Dewleta Turkiyê ev dîmena fîlm lêhilgirtî wekî belgeyeke terorîst bûna Kurdên vî welatî hesiband û propagendeyeke zaf kir ku heke hêzên Ewlekariyê û Polîs rêyê bidin, kiryarên wiha li seranserî Turkiyê dê biqewimin.

Em piştgîriyê ji xwenîşandana heqxwazane ya xelkê bajar û herêmên cur bi cur yên Kurdistana Bakûr dikin û li ser vê baweriyê ne ku pirsgirêka Kurd li Turkiyê û li hemû welatên herêmê de, dozeke haşalênekirî ye û hebûna wê heye û hewceye ji rêya demokratîk ve bihê çareser kirin.

Girêdana pirsa Kurdn bi terorîzm yan her tiştekе din di rêya haşa lêkirin ji doza Kurd, tenê arîşe û pirsgirêkê kûrtir û aloztir dike. Dewleta Turkiyê ku gavên xwe ji bo endambûn di Yekîtiya Ewropayê de xurtir kiriye, hewceye ku bi dîtingeheke demokratîk û hemdem mêzeyî pirsa Kurd bike. Ji ber vê çendê ku pirsgirêka Kurd li Bakurê Kurdistanê yê bûye astengeke mezin li hember endambûna Turkiyê de YE’ê de û bi gotina **Olî Rehn**, Serokê Komîsyona Berfirehkirina Yekîtiya Ewropayê, endambûna Turkiyê di YE’ê de ji rêya Kurdistanê derbas dibe û divêt dewleta Turkiyê di çarçoveya tixûbên xwe de wekî merc û pîvaneke wergirtin bi endambûna vê yekîtiyê mafê kulturî û neteweyî yê Kurdan bipejirîne û bi fermî nas bike.



*Di bersiva Osman Baydemir de, Receb Teyîb Erdoxan got:*
**“Jin, zarok û her kesek di vê xwenîşandanê de beşdariyê bike, terorîst tê hesibandin û divêt bihê serkut û tepeserkirin”**

# Demokrasî, Biha û Piratîka Wê

**(Beşa 25)**

**Kurmanc Hakkî**
**kurmanchakki@yahoo.com**

**Teoriyên demokrasiya delîberatîv ya Rawls**

**Wekhevî û pakî**

Li teoriya siyasî de gelek şiroveyên pêwendîdar bi çawaniya dadperweriya biryarên siyasî hene. Teoriya *dadperweriya* (1971/1988) "John Rawls" di sed salên derbazbûyî de yek li şiroveyên herî berçav yên felsefeya civaknasî bûye. Di vê beşê de em dê teoriya ramana dadperweriya "Rawls" şirove bikin.

Ji bo şirovekirina dadperweriyê, "Rawls" gîremîna[1] xwe di rewşekê de berçav dike ku **tarîtiya nezaniyê** li ser civakê hebe. Bi wê wateyê ku civak û endamên civakê tiştekê nizanin û bi tevahî di nezanînê de bijîn. Takên civakê di gîremîna han de şiyana xwe nas nakin, ev nasname û cihê civakî yê xwe nizanin û agadarê mafê civakî yê xwe ninin. Gîremîn her wisa eva ye ku ew nizanin maf û berjewendiyên xwe di civakê de dabeş bikin. Ew kesên ku dixwazin ser mafên civakî pêk bihên, di wê rewşê de dest bi diyalogê dikin. Ji ber ku aliyên pêkhatinê yan ew aliyên ku divêt berjewendiyan navbera hev parve bikin, agahdarî taybetmendî û mafên taybetî yê hev û du ninin, ew neçarin nihêrînek mirovanî bo hizra dadperweriyê bikar bînin.

Bi teoriya **Tarîtiya nezaniyê***,* "Rawls" dixwaze bala me bo aliyê seha dadperewerane ya mirov rakişîne. Tarîtiya nezaniyê garentiya wê yekê dike ku di pirsa diyarî kirî de **wekhevî û paqijî** bihê berçav girtin. Ew şêweya "Rawls" ji bo tarîtiya nezanîne bi *metoda dij, kiryara misogeriyê*[1] hatiye naskirin. Şiroveya "Rawls" mirov dikare bi dîtina exlaqî ya otonomiya mirov a "Kant" (ku di beşên berê de hatiye şirove kirin) bişibîne. Li gor "Rawls" otonomiya mirov demekê tê misoger kirin ku mirov di rewşek serbest û wekhev û rasyonal de be.

Di teoriya rewşa rawestayî ya mirov a "Rawls" (1988) de, mirov pirensîpên jêrîn ê dadperweriyê hildibijêrin: (i) Her takekesekê mafê wekhev heye ji bo azadiya berfireh ku tevî serbestiya kesên din nakeve kêşeyan û serbestiya mirovên din têk nede. (ii) Cudahiya pile û payeyên civakî divêt bi awayekê bihên saz dan ku hemû endamên civakê berjewendiyê li wê cudahiyê bibînin û ev cudahiye bo her kar û berpirsayetiyekê bihê berçav girtin. Dîtina beşa (ii) bi wê wateyê tê ku di kar û barên civakî de pile û nirxên cuda divêt di berjewendiya hemû mirovan û nemaze yên ku di rewşeke xirab de ne, bibe.

Hizra "Rawls" her wisa ketiye ber rexnê jî. Yek li rexnegirên "Rawls", "Beitz" (1989) e ku li gor wî, dîtina "Rawls" rastiyên nava civakê de, ji bîr kiriye. Girîmaneya "Rawls" li ser tarîtiya nezaniyê li gor "Bêitz" eva ye ku taybetmendiyên mirov ji bîr dike. Mirov dikare bipirse gelo çima takekes divêt girîmana tarîtiya nezaniyê bipejirîne? Sinûrdar kirina zanyariyên berjewendiyên aliyên pêkhatinê mirov dikare li gor teoriya pêkhatinê[1] li çarçoveya pêkhatina siyasî bi awayekê bê aliyane (impartiality) rê bixe. Ew nêzîkbûne li gor "Beitz" nîşan dide ku divêt saziyên siyasî di civakê de bi çi awayekê kar bikin.

Hewceyî bîranînê ye ku di navbera bêalîbûnê û wekheviyê de cudahî hene. Di rewşa bêalîbûnê de prêfirênsên cuda cuda tên berhev danîn û di rêzkirinê de bal bi girîngiya pirsan nahê dan. Ew basên ku di beşên berê de hatin kirin weke dîtinên agrêsîv li ser biryardana demokratîk, hezkirina gel, hizra birêveberiya berpirsyarane, dîtinên sade yê li ser wekheviya siyasî hemû di siruştê xwe de neutral in. Li teoriya "Rawls" û her wiha teoriya "Beitz" jî daxwaziya wekheviya berjewendiyan jî tê kirin. Ewa bi wê wateyê tê ku giraniya berjewendiyan divêt li serî de hewcehiyên mirov yên herî destpêkîn (Rawls) û hewcehiyên bilez û objektîv (Beitz) bihên danîn.

Li gor hin teorîvanên siyasetê wek "Carole Pateman"(1979) û "Benjamin Barber" (1984) tarîtiya nezanînê dibe hegera wê yekê ku takekes nekarin hilbijartina xwe derheq berjewendiyên xwe bikin. Her wiha ew wê rêyê digire ku mirov bikare li xala sifir de xwe di şûna kesek din de danê. Bi baweriya wan di rewşek wilo da mirov li hemû pêwendiyên civakî hatiye qutandin, ku evê jî tu elaqe bi dadperweriyê nine, belkî mirov dikeve di rewşek tarî û nezan li berjewendiyên xwe de.

**Erka dadperweriyê**

Her wekî teoriya dadperweriya siyasî ya "Beitz", teoriyên komunîkasyona "Habermas" (ku di beşa berê de hat şirove kirin) û teoriyên "Rawls" û alîgirên wî jî altirnatîvên serbixwe di biryara siyasî de pêşkêş dikin. Her wisa li gor dîtina "Rawls" û "Scanlon" (1982) mercên îdeal ên demokrasiyê ew in yên ku hemû nirx, biha û berjewendiyên pêwendîdar bi biryara siyasî bi aweyekî vekirî bikeve rojeva civakê û bi awayekî dadperwerane bikevin ber berhevdana civakê.

Di sincên demokratîk de gelek girîng e ku welatî seh bikin beşdarî li gotûbêjên rasiyonal yên siyasî de, *erka exlaqî ya* wan e. "Rawls" rasiyonal û dadperweriyê li hev cuda dike. Li gor wî rasiyonal ne tenê hilbijartina armancan e, belkî berhevdana armancên cur bi cur e.

Di pirtûka xwe de pakî di birêvebirina erkan de (*duty of civility)* li wêne kirina erk û wezîfeya mirov de dixwaze paqijî û insafê jî bixe berçav. Erka paqijiyê[1] mirov rênimayî dike ji bo guhdan, dîtin û ramanên kesên din û bi awayekî nerm û moderat rabûn û rûniştin tevî aliyên din û derbirîna bîr û hizrên moderat. Welatî divêt bikarin guh bidin dîtinên kesên din û bikarin dîtin û ramanên xwe jî biguherin. Li gor "Rawls" beşdariya siyasî nabe tenê ji bo berjewendiyên taybetî be, belkî berjewendiyên taybetî divêt beşek di armancên mezintir û berfirehtir be.

Di demokrasiya delîberatîv de biryarên kollektîv bi wateya çareseriya rijdî û konfilîktan jî tê şirove kirin. Hegerên konfilîkt û giriftan dikare dabeş nebûna matiryalan bi awayekî dadperwerane yan jî dijî hevî û rikeberiya nirx û bihayan be. Li gor teoriya demokrasiya delîberatîv gotûbêj û gengeşe yên pêwendîdar bi konfilîktên pêwendîdar bi matiryal dibe li ser bingeha insaf û paqijiyê bihên berhevkirin. Bo nimûne armanca "Rawls" li dadperweriyê di konfilîktên matiryal de berçavgirtina mirov ku hewcehiyên destpêkî yên aborî û civakî yên takekesane hewce ye. Bi vî awayî têgihîştina "Rawls" û "Beitz" li hev nêzîk dibin ku dibêje di biryarên siyasî de divêt berjewendiyên takekesan li gor argûmêntên objektîv bên berçav girtin.

Konfilîkta navbera mirovan dikare di demekê de jî ser hilde ku dahatên madî (matiryal) jî bi awayekî yeksan û dadperwerane hatibe dabeş kirin. Ew konfiktana dikarin bo nimûne giriftên ser nirx û bihayên mirovan bin. Li gor "Rawls" giriftên han bi hegera *têgihîştina giştî yên exlaqiyê* mirovan ser hildide. Ew cure giriftane bo nimûne di navbera dîn û olên cur bi cur yan dîtinên felsefî û ramanên siyasî ser hildidin. Ew giriftane dikarin cihê xwe di nava siyasetê de jî vekin û bibin hegera konfilîktên siyasî. Li demokrasiya pêşkevtî û modern ya Rojava rê ji bo hemû şirovekirinên hizrî û olî vekirî ye û piluralîzma civakî û siyasî rêyê li konfilîktên micid digire.

Hin piluralîzm û piranî alîtiyê li demokrasiya delîberatîv de bi pirsgirêk dizanin. Ji ber ku bidestveanîna

**Doma mijarê di rûpela 6'an de**

# Kê Li Hember Jiyana Zarokan Di Îranê De Berpirsiyar E?

***Hemîd Muxtarî***

Zarok sermaye û hêviyên pêşeroja welat in. Gotinek ku hertim di Îranê de, li xwendingeh û navendên perwerdehiyê li ser der û dîwar û kewalan hatiye nivîsandin, yan ji zimanê mamosta û rêveberan ve tê gotin.

Eva tê çi wateyê? Kîjan zarok dikarin hêviya pêşeroja welat bin û di pêşvebirina civakeke nû û pêşkevtî de alîkar bin?!

Bersîv ron û zelal e. Bê şik ev zarok dikarin ji bo civakê bibandor bin. ku çawaniya elimandin û perwerdehiya wan bi awayekî herî baş bê encam dan. Eva jî di gava yekem de wezîfa **malbat** û piştre jî **civak** û **dewlet**ê ye.

Niha pirs eva ye ku gelo zarokên me di Îranê de ji îmkanatên perwerdeyî û elimandinê mifahê werdigirin ku di geşekirin û pêşveçûna wan de bibandor be.

Gelo hikûmeta niha ya Îranê îmkanatên wiha li xizmeta zarokan didanê?! Gelo hemû malbatên Îranê xwediyê kar ya miaş û mehaneya baş in ku bikarin pêwîstiyên rojane yên zarokên xwe wek: xwarin, kinc, mal, dabînkirina hewcehiyên xwendinê, îmkanatên rihetî û wd... dabîn bikin?! Û wan neçar bi kar kirin di şeqam û cihên din de nekin, bo karên xirab nehên kişandin.

Gelo em civaka me cihê hitbar û baweriyê ye ku bikarin bi dil û fikreke rihet û netirs zarokên xwe di çarçoveya xizmet bi civakek han pêşkêş bikin?! Civakek ku jarî û xizanî, îtiyad, dizî, leşfirotin, Îdz, riziyoka malî û Îdarî tê de hawarê dike û gihîştiye qasê herî zaf yê xwe.

Ya rastî eva ye ku zarok çi di şer, yan bûyerên xwezayî wek lêmişt, erdhej yan destkurtî û jariya civakî, astengên malbatî û wd... goriyên yekem in û xwediyê tu piştgirî û piştevaniyekê jî ninin.

Mixabin piştî derbazbûna çendîn salan ji tevlîbûna Komara Îslamiya Îranê bi peymannameya 182’an a Rêxistina Navneteweyî a kar û pejirandiyên sala 1999’an, dîsan nekariye pêşiya kar kirina zarokan di şeqam û kargehên bin erd, yan karên qaçax û ne yasayî, bi taybet madeyên bêhişker ku yek ji wan 4 bendane ye ku di madeya 3’an ya vê peymannameyê de hatiye, bigre.

Li gorî serhejmariya dawîn ya Saziya Navneteweyî a Kar ku çend mehan berî niha di 87’emîn rûniştina xwe de pêşkêş kirin, yek milyon û 800 hezar zarok di Îranê de bi dahateke herî kêm kar dikin.

Her wiha divêt were gotin ku tund û tûjî û azardana zarokan di nav malbatên Îranê de bi awayekî berbiçav zaf û xurt bûye.



**Li Îranê zarok jiyaneke dijwar diborînin. Malbat, civak û dewlet li hember jiyana zarokan berpirsiyar in.**

Li gor lêkolînên navenda piştgîrî ji mafê zarokan li Tehranê, pitir ji %90 a tund û tûjî bi dijî zarokan di malbatan tê encam dan û ji 20 nimûnên azardanan, tenê 1 yan 2 nimûne tên ragihandin.

Pêka rapora Rêxistina “Behzîstî” a Tehranê, %60 ji azardanên zarokan di malbatê de ji aliyê mêran ve tê encam dan. Di piraniya wan tund û tûjiyane de keç zêdetir ji Kuran tên êşandin, nimûneya herî xurt ya êşandina zarokan lêdan û kutan e, lê cur û metodên hovane yên din ên şîdetê weke daxkirina laşê wan, lêdana wan bi qayîşê, derbe lêdan bi serê wan, avêtin û firedan ji bilindahiyan ku zaf caran dibe sebebê kuştina zarokan û ... niha li Îranê di halê xurtbûnê de ye.

Pitir êşandina zarokan di nava wan malbatan de tê rojevê ku bi terzekê tevî arîşeyên weke: Îtiyad, jarî, bêşolî, telak û yan jî nerazî ji zayend û regeza zarokan û wd... berengar in. Bi taybet ji hev veqetyan(telak) ku zarok di vê rewşê de tevî kesê sêyem weke zir bab û zir dayîk rû bi rû dibin, ku heta yê bûye sebebê kuştina zarokan bi dest wan.

Hemû evane ji aliyekê û ji aliyê din ve jî hebûna rejîmek paşverû weke Komara Îslamî di Îranê, ku piraniya yasayên wê ji Îslamê hatine wergirtin, destê dayîk û bavan di lêdan û azar û êşandina zarokan de vekirî hêştiye û zext û givaşên ser zarokan pitir û aloztir kiriye.

Bo mînak di madeya 220’an a Qanûna Bingehîn a vê rejîmê de hetiye ku heke zarok bi destê bav yan xizmên bavê xwe bihê kuştin, bikuj nahê kuştin û divêt tenê xwînbihayê bide. Yan madeya 59’an ya yasayê izin û rêyê bi dayîk û bav dide ku zarokên xwe ceza bikin, bikutin. Helbet ger ev lêdan û kutan di çarçoveya perwerdekirina wî/ê de bê encam dan, tawan nayê hesibandin, eva jî bi tevahî tevî madeya 19’ê a Carnameya Mafê Zarokan dijberî heye ku her terze îşkence û azara cismî û ruhî û tund û tûjiyê mehkûm dike.

Bi giştî rejîmek ku xwe sebebkarê tund û tûjî û pêkanîna tirs û xofê di navbera xelkê de ye, rejîmek ku zarokên bin 18 saliyê di nava xelkê û ber çavê xelkê didaliqîne(li dar ve dike), yan keç û jinan kevirbaran dike û di xwendingehan de çanda tund û tûjî û şer hînî zarokan dike, em çawa dikarin çavnihêr bin ku ber bi pêkhatina bûyerên dilêşyên wiha ku xwe sebebê fermî yê wan e, pêşgîriyê bike.

---

## Doma mijara Demokrasî biha û ....

yekdengiyê ku îdeala demokrasiyê ye, kareke gelek zehmet e. Di pirtûka xwe ya “*Political Liberalism”* (1993) “Rawls” modela *civaka rêxistî* pêşniyar dike. Bi wê armanca “Rawls” , civakek tune ku yekgirtiya exlaqî û yekrengiyek reha di nav de hebe, belkî ew civakekê mînak dike ku têde ser hin bingehên edaletxwazane lihevhatin (consensus) hebe. Her wisa di vê civaka hatî, model kirin li pirtûka “Rawls” de, daxwaza berjewendiyên takekes li gor berçavgirtina berjewendiyên mirovên din yên endamên civakê tê pîvan û berçavgirtin. Helwesta hevsazane û “integral” dibe hegerê kêmbûna konfilîktên micid yên siyasî. Her ji ber wê yekê ye jî ku civaka hatî rêxistin baştirîn nimûne ji bo civakek piloralîstî û çend renge. Di rewşek wilo de dîn û olên cur bi cur, netewe û kêmaniyên zimanî û nejadî yên cur bi cur û her wiha pirsgirêka jinan di nava civakê de dikare di çarçoveya çareseriyeke gişt razîker de bi hev re bijîn.

Li civaka rêxistî de konfilîktên civakî û exlaqî li rêya gotûbêj û gengeşeyên vekirî ku têde hemû endam û aliyên civakê beşdar bin, çareser tên kirin. Di demokrasiya delîberatîv de gotûbêjên eşkere dibin hegera pêkhatina yekdengiya nisbî ya welatiyan li ser pirsgirêkên pêwendîdar bi civakê û biryardanê. Merca gihîştin bi yekdengiyê hebûna şans û mafê wekhev e li beşdarî di diyalog û guftûgoyên civakî de, yên ku di çarçoveya **normên** hatî diyarî kirî cî bi cî dibin.

Doma vê mijarê di beşa tê de.

---

1 فرضیه 2 عکس العمل ثبات 4 ادب و نزاکت

3Agreement theory

**Hunermend Diyar Dêrsêmî:**

# "Dİ RASTÎ DE Lİ BAKÛR MUZÎKA KURDÎ TESÎREK PİR MEZİN Lİ SER KULTURA TURKAN KİR, ÇİMKU TURK Jİ ALİYÊ KULTURÎ VE PİR ZEÎF İN"

**Hevpeyvîn/ Selîm Zencîrî**

*Zaf in ew kesên ku di pêxema xizmet bi huner û muzîka Kurdî de gav hilgirtine, lê kin in yên ku karîne di vê rêyê de serkeftinê bi dest bixin û di nava refên gel de cihê hêja ji xwe re vekin û bibin hezkiriyê gel. Yek ji wan hunermendên navdar û serkeftî di qada muzîk û strana Kurdî de, Diyar Dêrsîmî ye.*

*Diyar di rojeke sar ya zistanê, 01.12.1965'an de, li malbateke cotkar û zehmetkêş a gundê Hêwedana herêma Mazgirtê, ser bi bajarê Dêrsîmê çavên xwe bi jiyanê vekirin. Xwendina xwe heta lîsê(dîplom) domand. Bavê Diyar jî hunermend bû, wî Dihol lê dixist û li deverê de miroveke xweştivî û hezkiriyê gel bû. Her eva bû sebebê pêkhatina hêvênê hunerê di Diyar de û heya mideheke zor di karê hunerî de bavê xwe re bibe hevkar*

*Diyar di payîza sala 1988'an de koçberî Ewropayê bû û li wir karê xwe yê hunerî domand. Roj li pey rojê karî ye serkeftinên pêtir bi destve bîne û ciheke jêhatî di nava behra huner û muzîka Kurdî de dest bixe. Heya niha wî çendîn berhem û albûm pêşkêşî gelê xwe kiriye ku ji wan em dikarin Karwan, Cenga Jînê, Way Dunyayê, Tîna Rojê, Gulê Neçe û Kehniya Stranan nav bibin.*

*Çand rojan berî niha em haydar bûn ku hunermed Diyar hatiye Kurdistana azad, lewra me derfet bi girîng zanî ku ji nêzîk ve hevpeyvînekê bi vî hunermendê dengxweş re pêk bînin.*

*Ez û hevkara xwe ya evîndarê Diyar ji bîroya weşana Agirî li binkeya Deftera Siyasî ya PDK Îranê ber bi Hewlêrê ketne rêyê. Bi cehd û hewildaneke zor û zehmet me karî wî bibînin. Mandîbûn û westiyan bona kar û xebatê bi xurtî di rûçikê şirîn û delal yê wî dihate dîtin. Lê serbarê vî halî, wekî berê hezkirin, hêz û şiyana xizmet bi huner û muzîka Kurdî di hundirê wî de hawar dikir. Ji ber ku qirar bû li Hewlêrê konserekê bide û mijûlê temrînkirin tevî koma muzîka xwe bû. Dema wî gelek teng û hindik bû. Derûna me tejî bû ji pirsên ku me dixwast bersiva wan bibihîsin, hundir û derûna Diyarê dengxweş jî tejî bû ji bersivên girîng û hewce ku diviya bihatiban gotin. Lê kêmbûna wext û derfetê ne rê da me ku em gelek pirsan raberî wî bikin û ne jî Diyar karî demeke zêde bi me re be.*

*Kerem bikin, eva hûn û hevpeyvîna me bi Diyar re:*



Diyar:

## "DEMA EZ DIBÎNIM ZAF ÎNSAN JI MIN HEZ DIKIN, BARÊ MIN GIRANTIR DIKIN. EZ DITIRSIM Û DIBÊJIM ÇAWA DÊ JÊHAT Û LAYÎQÊ VÊ HEZKIRINA WAN BIBIM"

**Hunermend Diyar, berî her tiştekê ez bi xêrhatina te bo Kurdistana azad dikim, tu xêrhatî ser çavan.**

**Diyar:** Sax bî, nav xêran de bî, ser û çavê we sax bin.

**Eva ku bo cara yekemîn e hûn tên bo Kurdistana azad, we çi hestek heye?**

**Diyar:** Rast e, ez cara yekemîn e têm Başûrê Kurdistanê û Kurdistana azad. Ez berê çûm Başûrê Biçûk, piştre çûm Bakûrê Kurdidstanê, îro jî em hatine Başûrê Kurdistanê. Mixabin welatê me kirine çar perçe. Gava ez diçim perçeyeke Kurdistanê, di rastî de hesteke cuda û heyecaneke pir mezin dibînim. Dema em ji Bakûr hatin û derketne sînorê Kurdistanê, cara yekemîn bû ku ji sînoreke Kurdan re derbas dibûm û polîsên Kurdan kontirol dikirin, eva jî bo min heyecan û hesteke pir mezin bû.

**Armanca te ji hatin bo Kurdistanê çî ye?**

**Diyar:** Ez hunermend im û hatime konseran çê bikim. Her wiha gelê xwe binasim, bibînim û bi wan re stranên xwe û dilê xwe parve bikim.

**Muzîk û hunera biyaniyan, bi taybet ya her çar desthilatên hakim bi ser Kurdistanê de heya çi qasekê kariye bandorê li ser hunera me bike û bihagiranî û esaleta huner û muzîka me Kurdan ji nav bibe?**

**Diyar:** Rast e, niha ne tenê ji aliyê hunerî, belkî ji aliyê civakî de jî tesîr li ser civak û jiyana civakî a me kirine. Eva jî li hin perçan pêtir tê berçav. Li Bakûrê Kurdistanê wan di gelek aliyên jiyanî de, Kurdayetî anîbûne qonaxekê ku xilas bikin û bi yekcarî mejiyê Kurd, jiyana Kurd ji nav bibin, asîmîlasiyoneke pir mezin çêbû û heta ez dikarim bibêjim jînosîd. Lê stranên me û kultura gelê me gelek bihêz û qawet in. Ez dibêjim li Bakûr pêtir stranên Kurdî tesîr li ser stranên Tirkî kirine. Wan tenê karîn muzîkê bigrin, gotinên wan biguherin, gotinên Tirkî li ser nosadin û kirin malê xwe, lê mirov kîjan stranê guhdar dike, derdikeve ku Kurdî ye. Bi giştî wan nekarîn ji me bistînin, çunkî bingeha folklora Kurdî, leyîstikên folklor, govendên Kurdî û ... gelek qahîm e. Lê ger ez dinihêrime perçeyên dinê weke Rojhilat û Başûr, dibînim muzîka Erebî û Farsî gelek tesîra xwe li ser muzîka Kurdî kiri ye. Eva jî bi vê wateyê nine ku ez li Bakûr im û wiha dibêjim. Di rastî de li Bakûr muzîka Kurdî tesîrek pir mezin li ser kultura Turkan kir,

**Hunermendê dengxweş Diyar:**

# "MIN TIM XWEST KU TEQLÎDA KESÊ NEKIM Û BIBIM XWE, BIBIM DIYAR"

çunku Turk ji aliyê kulturî ve pir zeîf in. Lê muzîka Erebî gelek xurt û qahîm e. Lewra di van perçan de muzîka Erebî pêtir tesîra xwe li ser muzîka Kurdî kiriye û gelek motîvên Erebî di nava muzîka Kurdî de hene, lê di van salên dawîn de em dibînin mekteb, konserwatwar û ... li Başûr çê bûne. Belkî bi îlm û zanbûnê muzîka me hinekê safî bû û ber bi paqijbûnê diçe. Li Bakûr jî di van 30 salên dawîn de hunermend rabûn bi şoreşê, ji ber ku berê strandin qedexe bû û nedikarîn Kurdî biaxivin û bistirin, lê niha muzîka me li Bakûr gelek pêş ketiye. Zaf ji muzîkên ku hatibûn dizîn û gotinên wan hatibûn xira kirin, me ji nû ve tekst û gotinên wan yên orjînal kirin albûm û pêşkêşî gelê xwe kirin.

**Tu huner û muzîka Kurdî di çi astekê de dibînî?**

**Diyar:** Huner û muzîka kurd di rewşeke baş de ye. Lê ger mirov hinek dûr binihêre û bixwaze analîz bike, eva meseleyeke dûr û dirêj e.

Her çend li Başûr konserwatwar û mektebên muzîkê hene û ger derfetên pêtir çêbin dê hîna baştir be. Lê divêt û pir girîng e ku di bin himayeta dewletê yan desthilata herêmî de konserwatwarek bihê çêkirin ku mirov çawa dikare dersê bixwîne, bikare muzîkê jî bixwîne. Li Bakûr hêj îmkanatên wiha me tu ninin. Li derveyî welêt hin akademiyên çand û hunera Kurdî hene, lê hîna baş pêş neketiye û divêt koserwatwar bi zanîngehên perwerdeyê ji bo muzîkê hebin, heta ku xortên Kurd, kesên ku muzîkê çê dikin, bi awayekî îlmî û zanistî hîn bibin da ku bikarin berhemên baştir çê bikin û bixuliqînin. Em dibînin her hunermendek li midehê yek du salan de kaset yan albûmekê çê dike û stranên nû û folklor derdixîne, stranên kevn tînin û bi awayekî modern distirin. Bi vî awayî xezîne û reportewara stranên me zengîn û dewlemend dibe. Bo nimûme gava em li Turkî dinêrin, dibînin zaf hunermend stranekê distirin, lê di nava me de her hunermendek stranên taybet bi xwe distirin, ku eva jî reportwar û xezîneya stranên Kurdî dewlemend dike. Bi giştî pêşveçûnek mezin heye û ez dibînim.

**Lê ev pêşketina ku te qala wê kir di hemû parçe û parêzgehên Kurdistanê de nahê xuya kirin. Bo nimûne di Bakûrê Rojhilatê Kurdistanê de hunermend tenê di şahî û govendan de tên naskirin. Hûn sedemên vê çendê di çi de dibînin?**

**Diyar:** Her wek berê jî min qala wê kir, cihê perwerde û zanîngehên elimandinê di van parçan de ninin, anku konserwatwar tu ninin ku mirov bi awayekî îlmî û zanistî tê de hîn bibe. Li Başûr hin azadî çê bûye, lê em di Bakûr, Rojhilat û Başûrê biçûk de hîna bindest in. Em azad ninin û nikarin bi terzek zanistî mektebên muzîkê yan enstîtûyekê çê bikin ku tê de perwerdeyên zanistî bên kirin.

Ji aliyê din jî hunermend bi xwe sebebkar in, tiştên popolîst yanî belkî hin caran taybetmendiyeke gelê me tiştê folklorîk hezif dike, yanî ger meriv stîlê din, sîlav û tiştên giran jî çê bike û bistire, pir baştir e û gel jî ji wê hez dike. Min bi xwe stranên giran pir gotine û gel jî jê hez kiriye. Lê hin hunermend hene ku tim tirsa wan heye ku tiştên sivik û popolîst çê bikin û tenê bihê guhdar kirin, eva jî tenê pê tê lîstin. Anku ji bo govend û şahiyan tên bikar anîn. Wekî wê ku tu koserekê didî û tenê bi rîtm be, xelk jî direqisin, dilîzin, kes fên nake ka tu çi dibêjî, gotinên te û hestên te çi ne? Wekî wê ku kesek def û zornayê lê bixe û hunermendek jî stranên govendê bistire her du mîna hev in. Lê erk û wezîfa hunermend e ku xulqandin û afirandinê bike. Stranên cuda cuda jî bo guhdar kirinê bixulqîne. Ne eva ku hunermend ji ber hin tirsên popolîst tim wiha bifikire ku ger ez hin tiştên sivik û popolîst çê nekim, kes ji min guhdarî nake.

**Hin hunermend ku di esliyeta xwe de Kurd in, lê hunera xwe danîne xizmet netewe û zimanên biyanî de. Diyar di vê derheqê de çawa difikire?**

**Diyar:** Belê. Hûn ji min baştir dizanin ku we çû Îbo anî vira. Ez di vê derheqê de dibêjim ew kesên ku Kurdin û di vê qonaxê de xizmeta çanda biyaniyan dikin ***ez tim dibêjim ku evana kerê me ne, lê çûne di axûrê xelkê de dizirin***.

Em pir bi hestê xwe hereket dikin, gava ku kesek dibêje ez Kurd im, em jî zû tên û dibêjin filan kes got ez Kurd im. Ev tişte bo min tu qîmetek nine. Me ew qas bedel daye, şehîd dane, xwîna me hatiye rijadin û ... . Lê di vê demê de jî Kurdek rabe û bêje ez Kurd im, ez jî jêre dibêjim roj baş. Angu tiştek ne gelek mezin e, belkî berî 30 salan gava kesekê bigotiba ez Kurd im, ew tiştek mezin bû, lê niha bi raya min 5 pare qîmeta xwe nine. Çunku gelek eyb û şerm e Kurdek heya vê demê pê Kurdatiya xwe ne hesiya be û niha rabe bêje ez Kurd im.

Bo nimûne ewane çûn Îbo anîn vira. Ez vê yekê ji aliyê çandî ve wiha dinirxînim ku mirov here bimbekê bîne û têxe mala xwe. Çunku Îbo xizmeta çanda Turka û wê sîstemê dike, tê vira û dibêje Turkê kurê Turka me û xwe înkar dike. Em dibînin ji aliyekê ew dîzî(xelek), TV û çanda Turka pir bandora xwe kiriye, hîna jî em rabin ji rêya kesan yan dewletê ve wan kesan bînin vir, ew şaşiyek pir mezin bû. Ji ber ku em li demek nazik û hesas de derbas dibin, civaka Başûr jî derfetek baş dest wan ketiye û divêt baş bê bikaranîn. Neku em rabin mîna civakên pêşketî bikin. Ber ku civakên bindest hinekê kompeleksa wan heye û tim dixwazin xwe mîna civakên serdest bikin. Weke wê ku tu ji xulamekê bipirsî ku tu dixwazî bibî çi? Ew jî dibêje ez dixwazim bibim axa. Bi giştî evane tiştên nazik in û girîng e di vê îmkan û derfeta heyî de mirov şaşiyan neke. Anîna Îbo bo vira ji aliyê çandî, polotîk û siyasî ve şaşiyek pir mezin bû. Normal e ku mirov here û hunermedek Turk yan Îngilîzî bîne vira û kosereke Turkî û Îngilîzî bide, eva tiştek din. Lê divêt mirov hest bike ku Îbo bi çi reng, awa, mebest û armancekê tîne vir, ew pir girînge.

**Diyar wekî hunermendekî dengxweş û xweştevî li destpêka karê xwe de kete bin bandora dengê kîjan hunermend, niha pêtir hez ji dengê çi hunermendekê dike?**

**Diyar:** Dema ku min dest bi karê hunerî û stranan kir, min tim xwest ku teqlîda kesê nekim û bibim xwe, bibim diyar. Rast e ku ez guhdariya dengê Mihemed Arif Cizrawî, Hesen Cizrawî, Eyşeşan, Kavûs Axa, Erdewan Zaxoyî, Hesen Zîrek û Tehsîn Taha dikim û ji dengê wan hez dikim. Radyoya Erîvanê min pir guhdarî dikir, lê min tim xwest ez bibim Diyar û teqlîda kesê nekim ku eva jî bo min niqte û xalek pir girîng û pozetîv bû. Niha jî ez muzîka her çar perçên Kurdistanê, Rojava û bi giştî çi derdikevin, guhdarî dikim, lê ger hûn bêjin taybetî, ez ji dengê Mihemed Arif Cizrawî pir hez dikim û gelek tesîra xwe li ser min dike.

**Carna em hin berhemên bi zimanê Turkî ji te dibihîsin, gelo te armancek taybet ji wî karî heye, yan na?**

**Diyar:** Rast e. Belê min armancek taybetî heye. Em li Turkiyê di şoreşek pir mezin de ne. Me li Bakûr gelek şehîd dane, êş kişandiye û ... Bi giştî dema ez stranekê bi Turkî çê dikim, ez dixwazim em ji bo şehîdekê çawa distirin yan çawa li azadiyê dinêrin, wan re(çi dost û çi dujmin li Bakûr) jî bidim fêm kirin.

Min di her albûmekê de stranek bi Turkî heye, bo mînak min stranek bi Turkî li ser aştiyê çêkir û stra, îca aştî çi digel Turka be yan digel kesên din, min xwast ew ji me fêm bikin ka em kê ne? Çi dibêjin? Tenê armanca min ew bû nexa ez Kurd im, hunermendekî Kurda me û Kurdî jî distirim.

**Hunermend Diyar, gelek ji berhem û kilîpên te xemgîn û xerîb in, xemek veşartî têde tê xuya kirin. Başe Diyar di dilê xwe de çi xemek heye ku wiha xemgîn distire?**

**Diyar:** Diyar jî Kurd û hunermendekî Kurd e. Kurd li dem û qonaxeke hesas û dijwar de derbas dibin. Me gelek êş kişandiye û dikişînin, zarokên me bin panzeran de dimînin û li hembêza dayîkan de mirin, bi hezaran Kurd di girtîgehan û li bin îşkenceyan de ne, her roj dil û kezeba dayîkên me tê şewitandin, bêhurmetî bi dayîkên me re tê kirin. Sala 1991'an û berê jî bi hezaran însanên me ketin çiya, zulm û zora Sedam, Helebçe, Enfal û ... . Bi giştî em gelek êş dikişînin û bawer nakin Kurdek hebe ku di dilê xwe de xemgînî tu nebe. Ez jî ne tenê hunermend im û stranan çê dikim. Ji ber ku rojeva siyasî a Kurd di her çar perçeyan de dişopînim. Siyaseta Kurdan bala min dikişîne û dişopînim ku cîhan li ser Kurdan çawa difikir e û ...

Lewra kêm caran em keyfxweş in, em piranî xemgîn in û her bi vê sedemê ye ku stranên min jî pêtir xemgîn derdikevin.

**Hevjîna te Denîz Deman serbarê wê ku hunermendek nû û taze derketiye qada hunerê, lê kariye alîgirên zor û bala zaf kesan bo aliyê dengê xwe rakişîne. Gelo sedema wê vedigere ser wê ku Denîz hevjîna Diyar e, yan na tesîra te kêmtir bûye?**

**Diyar:** Na. Denîz ne eva ku hevjîna min e, lê rastî jî dengxweş e. Ez jî dengê wê diecibînim. Ger dengê wê nexweş ba, me tiştek wilo nedikir. Em tim dibêjin ger cewherek kêlek mirovan be û meriv wê cewherê pêşkêş neke, eva tiştek nebaş e. Ez jî hunermend im û ger Denîz cîran, xweşk û keseke din jî ba, min zanîba ku dengê wê xweş e û dê bikaribe xizmeta çanda Kurdî bike, min dê alîkariya wê bikiriba.

Denîz jî hevala min bû û min dît ku dengê wê gelekî xweş e, ji pir kesan re baştir dikare bistire min jî ji aliyê teknîkî, arence û ... alîkarî kir û albomek derxist ku li gor nêrîna min tiştek baş derket. Vêca nizanim ka gel dê biecibîne yan na, ew jî dê li pêşerojê de eyan be.



Hunermend Diyar:

# "EW KESÊN KU DI JIYANA MIN DE EZ REXNE KIRIM, MIN TIM QEDR Û QÎMET DA WAN"

**Başe hunermend Diyar, raya te li ser partiyên siyasî çî ye? Hûn alîgirê çi alî û partiyeke siyasî ya Kurdistanî ne?**

**Diyar:** Mirov dikare li ser vê mijarê zêde raweste, lê ez dê bi kurtî bibersivînim.

Partî ji bo xizmet kirin bi gel in. Bo min tu ferqek nake, partiya kê dibe bila bibe. Ez hunermend im, hunermendê gelê xwe me. Ger partî di çarçoveya xizmet bi neteweya Kurd, berjewendiyên Kurd û Kurdistanê de dimeşin, wê demê qedr û qîmeta xwe hene.

Partî ne mîna taqim û girûpên fotbolê ne ku xort û ciwan pê wan bikevin. Partî ne eşîretî ne. Em di sedsala 21'an de dijîn, gerek e mirov zanistî û bi zanebûn pê wan bikeve. Pir girîng e dema ku mirov ji îdeolojiyek yan felsefeyekê hez bike yan nîzîkî xwe bibîne, bi awayekî zanistî pê bikeve. Ne eva ku xalê min, apê min yan birayê min di partiyekê de bin, ez jî neçar bim pê wê partiyê bikevim. Ji ber ku bo vê yekê îlm û zanist hewce ye û girîng e mirov hinekê li ser îlma siyasetê zanibe.

**Peyam û mesaja Diyar ji bo xwendevanên Rojnameya Agirî û guhdarvan û evîndarên dengê xwe çî ye?**

**Diyar:** Ez ji xwendevanên Agirî û guhdarvanên xwe re rêz û silavan pêşkêş dikim. Ez tim dibêjim çunkî civaka me pêwîstî bi pêşketinê heye, lewre divêt civak di her aliyekî siyasî, çandî, civakî û ... de, siyasetvan, hunermend û ... teqîb bike, bişopîne, şaşiyên wan bibînin, wan rexne bikin. Çunkî hemû tiştên ku em dibêjin belkî ne rast in, carna mirov kêmasiyan jî dike. Lewre ez dixwazim bila temam min guhdar bikin û kêmasiyên min bibînin, min rexne jî bikin. Lê rexneyên rast û pozetîv û kêmasiyên mirov sedî sed bi cesaretek mezin ve bibêje ta ku însan pêş bikeve. Ne eva ku bi tiştên nebaş kesayetiya mirov biherifînin yan bişkînin.

Ew kesên ku di jiyana min de ez rexne kirim, min tim qedr û qîmet da wan. Çunkî ger mirov ji kesekê hez dike û dixwaze ku pêş bikeve, ne tenê di aliyê hunerî, belkî siyasî, civakî û ... de jî şaşî û kêmasiyên wî/ê bibîne û wî/ê pozetîv rexne bike. Ez tim wiha difikirim. Dema guhdarvanên min ji deng û stranên min hez dikin, barê min giran dikin. Dema ez dibînim zaf însan ji min hez dikin, barê min giran tir dikin. Ez ditirsim û dibêjim çawa dê jêhat û layîqê vê hezkirina wan bibim. Dîsan jî ez xwendevanên Agirî û guhdarvanên xwe re rêz û silavan dişînim û dibêjim îşala emê bi hev re hîna berhem û tiştn baştir, rojên geştir û xweştir bibînin.

**Hunermend Diyar, ez ji aliyê rojnameya Agirî ve pir spasiya te dikim ku te dema zêrîn a xwe bi me re veqetand. Ez ji te re saxî, serkeftin û rojên xweş hêvî dikim.**

**Diyar:** Gelek spas ji te re jî. Sax û serkeftî bî.

# DEMOKRASÎ

**ADAR JIYAN**
adarjiyan@mynet.com

Sazûmana ku gel xwe bi vîna xwe û bi xwe pêk tîne û bi rê ve dibe wekî demokrasiyê tê binavkirin. Têgeh, ji peyva yewnanî ya "demos" ku tê wateya "gel" û ji peyva "kratos" ku tê wateya rêveberiyê, hatiye dariştin.

Koka peyvê, xwe dispêre çanda yewnaniya kevn. Belê ji wê demê heta îro, wateya peyvê ya têgînî gelek caran guheriye û bi awayekî dorhêl û berfireh, hatiye ravekirin û şîrovekirin. Ji ber ku jêdera peyvê yewnanî ye, her wiha bikaranîna wê jî ji hêla yewnaniyan ve pêk hatiye. Û sepînerên sereke yên pergala demokrasiyê jî dûgelên Grekî yên bajarên Atîna û Spartayê ne. Wê demê, li van her du bajarên qedîm, du heb dûgel(dewlet) hatibûn damezrandin. Belê ew dûgel, tenê ji hêla mêran ve dihatin birêvebirin. Mêrên wê demê, li ser navê **civîn** û **komcivînên giştî** li hev vedihewiyan û guftûgoya rêvebriyê dikirin.. Peyre rêvebrek dihate neqandin û ew rêveber wekî serok-dewlet dihate tayinkirin. Piştî pêkanîna qanûn û zagonên bingehîn, liv û tevgerên mirovan û danûstandinên wan ji hêla rêveberiya dewletê ve dihate venihêrtin û kontrolkirin. Û ev rêveberî wekî "demokrasi"yê ango "rêveberiya gel" dihate binavkirin. Ev yek jî li gorî wê demê tiştekî pir bikeys û guncan bû.

Avakirin û bikaranîna demokrasiyê, di civata yewnanî ya ku zordestiya piraniyê li ser hindikahiyan hukim dikir de, pêşketin û rûdaniyeke bêhempa bû wê demê. Di dîroka mirovahiyê de cara yekem bû ku di navbera endamên civakê de navê yeksanî û wekheviyê dihate bilêvkirin. Belê bikaranîn û sepandina rêbaz û azîneyên demokrasiyê zêde dom nekir. Piştî çanda yewnaniya kevnar, peyva demokrasiyê bi sedan sal nehate bilêvkirin; heta hate jibîrkirin. Lewre êdî hevsarê civatê ketibû destê qeyzer û dewletên zordar û teokratîk(fermander). Piştî vê rêveberiya zoran û stembar a ku bi sedan sal dom kir, demokrasî dîsa li ser heman xakê, li ser koka xwe aj da û hate sepandin. Cara yekem, di sala 1641'ê de li Giravên Rodosê, ji hêla lijneyeke serbixwe û demokratîk ve qanûna bingehîn a siyasî hate damezrandin.

Ji roja ku mirovahî bi xwe hay bûye û derbasî jiyana xwecihî û komelî bûye û heta îro, du sazûmanên rikber û dijber her gav li hemberî hevdû hebûna xwe kudandine. Her çendî ku navê van sazûmanan, awa û çawaniya wan guherîbe jî rol û rista wan qet neguheriye. Li gorî sazûmanên otokrat, dûgel û xuhermend (dewlet û hikûmet) li ser navê gel biryar dide û zagonên bingehîn derdixe. Di civakên paşmayê de, gel di xizmeta dewletê de ye û dewlet şêwaz û



azîneyên otokratîk bi kar tîne. Belê di civakên pêşketî de dewlet, di xizmet û suxreya gel de ye û gel bi xwe şêwaz û azîneyên demokratîk bi kar tîne.

Der barê têgihîştin û sepandina demokrasiyê de, li rojavayê dinê (belê nemaze li welatên Ewropayê) gelek nêzikayîtêdanên cur bi cur pêk hatine. Bo nimûne "Abraham Lincoln" demokrasiyê wekî "rêveberiya ji hêla gel ve belê ji bo gel" rave dike. "Churchill" jî dibêje: "Demokrasî, ne rêveberiyeke têkûz û bêqisûr e; belê dîsa jî rêvebriya herî kêmqisûr e."

Divê neyê jibîrkirin ku demokrasî, demeke dirêjê ji hêla civakên Ewropî de, wekî dawer, nîşan û sembola mirovbûn û şarezabûnê ya bêhemsal hatiye dîtin û pejirandin. Li aliyê din, derdor û alîgirên sosoyalîzm û marksîzmê jî li demokrasiyê xwedî derketine. Belê baş tê zanîn ku demokrasî ji hêla çîna burjuwazî û derdorên lîberalîst ve her gav hatiye/tê dejenerekirin, çilvirandin û bêesilkirin.

Bi rastî jî wisa ye. Lewre îro jî hemû stembar û desthilatdarên dinê, li ser navê demokrasiyê rojê welatekî dagir dikin û mafê gel û civakên bindest binpê dikin. Tenê ne serdest û serwerên dinê; her wekî din, êrîşkar, mêtinger, dagirker, mijokdar, şerxwaz, kujer, cerd û selefxurên dinê hemû jî xwe li bextê demokrasiyê digirin û mexseda xwe pêk tînin.

Demokrasî, ne sazûmana serbestî û serberadayî ye. Ew, ewleyiya azadî û aramiyê ye. Ango demokrasî ne ew pergala ku kî çi bixwaze wê bike û bi serê xwe tevbigere. Demokrasî çeqa rêbazên hevaheng ên lihevkirin û rêzdariyê ye. Ew, misogeriya rewabûn û mafdariya mirov û hîm û ripinê ragirtin(tehemûl)û aramiya civakî ye.

Ligel ku demokrasî wekî rêvberiya gel û ji bo gel tê zanîn û ravekirin jî, mixabin, ji bilî gel û civakê her kes wê ji bo xwe, wekî stargeh û mertaleke qewî dibîne û bi kar tîne. Û dîsa mixabin îro ro dijmin û dijberên demokrasiyê yên sondxwarî hemû jî li ser navê demokrasiyê tevdigerin. Belê li aliyê din jî berî ku gora demokrasiyê bikolin, ben û kindirên xwe hildidin û sêpêka gel û civakên bindest li dar dixin. Divê gel tu car nebin dijmin û neyarê demokrasiyê; belê her gav dijmin û dijberên demokrasiyê jî baş binasin.

Kaniya Helbestan

## BİHAR

**Latîf Epozdemir**

Dem Adar e av li dar e
Gazî dike li nîsanê
Qefs û qeda dibin peyda
Piştî taviyê baranê

Ku Newroz e geş e dinya
Di şer dane ax û giya
Diteqin ewrên li ezman
Erd bi axê têr û temam.

Erd bi giya dibe avis
Kev diçêrin li nizaran
Mih û bizin li mexelan
Nîr û misas bi cotyaran.

## KES HENE

Kes hene ku rûniştî be
Têr xwarî û wergirtî be
Mîna marê veşartî be
Lê tac û text bextê wî be.

Kes hene ku xeyidî be ji cîhanê
Lê bextewer be bi jiyanê
Ew bi xwe bi gazin û gilî be
Lê gel jê re ser û pî be.

Kes hene ku herdem aşt in bi xwer e
Bawermendin êniya wan bi gewher e
Tengasî wan dilsar nakin, kubar in,
Dilê wan pir û pak e.

Baş ev e ku ber li pêş e
Li ser rojê dil bi êş e
Xwe nû dike, wek çira ye, rewşenbîr e
Eger hêdî, eger bi lez namîne paş, her dimeş e
Kesên westa ne qaîl in, bi figan in
Kesên hosta bêzar nabin, bi biryar in
Kesên tilar pêş nakevin bê derman in.

**Çeprast:**

1. Bajarekî Kurdistanê ye - Bangdana Mela
2. TVyeke Kurda ye - Îdareya rêveberiyê a NY – Ker ker kirina Şimtî û ... .
3. Navê keçan e – Tirs.
4. Anî - Lê belê – Kel.
5. Nik, bal - Tuxmê Ereban - Hekî N bihê zêde kirin tê wateya navê rûberekî pir û bi nav û deng.
6. Rihlibereke biçûk e.
7. Çi nehêştin - Berevajî tê wateya Deftera kar û barên Hiquqî a NY.
8. Paşayekî Mad.
9. Bo banê xaniyan bi kar dihat - Êş û derd di Farsî de.
10. Kesê/a ku zaf û bê çine digere - Kelpûçê neqelandî - Baranê dibarîne.

**Serjêr:**

1. Dîrokzanê ku Hulukast ret dikir - Bi tevahî.
2. Hozanvanekî Fars e – Çima.
3. Hekî D bihê zêde kirin tê wateya bav û kal - Berevajî navê welatekî Afrîqayî ye.
4. Navê kovarekê ye ku di Îranê de tê weşandin.
5. Endamekî laşê mirov e.
6. Navê straneke Îbo ye.
7. Baravajî navê lîstikekê ye ku zarok pir jê hez dikin.
8. Ew fîlimçêkêr ku mideheкê berî niha di kiryarekî terorîstî de canê xwe ji dest da - Hekî M bihê zêdekirin navê TVyeke Erebî ye.
9. Ew kesê/a ku bi sûçê zererdana li dîmenê li xaçê dana Mesîh ji hêla dêrê ve hate şewitandin - Bêy vê jiyan nameşe.
10. Peyrewê olê Manî –Jî.

# Xaçepirs

Amadekar: Şehab Xalidî




# Sudoku



| | | | | | | | | |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| | | 9 | 7 | | | | 4 | |
| 4 | 7 | | 2 | | 6 | | 9 | |
| | | | 1 | | | | | 8 |
| | 8 | | | | | 3 | 7 | 4 |
| | | | | | | | | |
| 7 | 6 | 5 | | | | | 1 | |
| 6 | | | | | 3 | | | |
| | 3 | | 6 | | 8 | | 5 | 2 |
| | 5 | | | | 7 | 9 | | |

**Xwendevanên hêja!**

Li niha şûn de di Agirî de kunca nû ya "Sudoku" tê weşandin. Hewce ye hûn tenê wan sê xalên jêrîn berçav bigirin.
Bersiva rast di hejmara din tê belav kirin.

**1. Hejmarên 1-9'ê di rêza serjêr de dubare nabin.**
**2. Hejmarên 1-9'ê di rêza çeprast de dubare nabin.**
**3. Hejmarên 1-9'ê di nava stûneke 3×3 de dubare nabin**

*Besiva Xaçepirsa hejmara 36'an*




# Spas û Pêzanîn

Ji aliyê rêzdar **Mesûd Tek**, Sekreterê Giştî yê PSK'ê, du caran dehan pirtûkên Kurmancî, di mijarên cuda cuda de pêşkêşî pirtûkxaneya weşana Agirî hatiye kirin. Ev alîkarî û piştgîriya birêz Mesûd Tek cihê rêz û hurmetê ye ku li belavokek Kurdî ya Kurmancî xwedî derdikeve.

Bona vê gava pîroz û bilind, em spas û pêzanîna germ ya xwe pêşkêşî xebatkarê hêja Mesûd Tek dikin.

**Desteya Nivîskar ya Agirî**

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/kurmanci. php**

**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE
**E - Mail:**
**rojnama_agiri@yahoo.com**
**agiri2003@hotmail.com**

# Îdama 182 Kesan Di Îranê De



Wêneyek ji dema îdamkirina hovane ya 3 ciwanên Kurd li Îranê

Zêdebarê hemû zext û givaşên navneteweyî û nerazîbûna Rêxistina Mafê Mirovan a Navneteweyî, hejmara kesên ku di Îranê de tên daliqandin, sal bi salê zêdetir dibe.

Li meha Marsa 2005'an heya niha 180 kes li Îranê hatine sêdare dan.

Zêrevanên mafê mirovan didin zanîn ku piştî hatine ser kara Mehmûd Ehmedînejad û bi destve girtina desthilatê, hejmara kesên ku tên Îdam kirin gihîştiye astekî herî zaf.

Di vê derheqê de Rêxistina Efûya Navneteweyî û Rêxistina Maf Mirovan nerazîbûna xwe li hember jêhel çûna qasa daliqandinê di vî welêtê de eyan kir û da zanîn ku di nava wan 182 kesan de 5 kesên bin 18 saliyê de tên berçav.

Her wiha di deverên Rojhilat Kurdistanê de, pêvajoya daliqandina welatiyên Kurd zêdetir bûne. Îdama girtiyên Kurd ji ber xebat û ramana wan ya siyasî û neteweyî vedigere. Hêjayî gotinê ye ku niha ji 19 kesên din re biryara Îdamê hatiye der kirin.

# Du Rojnameyên Kurdî Yên Nû

**"Kurdistan Raport"**

Rojnameyeke rojane ya siyasî û rewşenbîrî ya giştî a azad e ku li Hewlêrê weşana xwe dest pê kiriye û di 12 rûpelan û bi 2 zaravên Kurmancî û Soranî weşanê dike.




**"Beyanî"**

Rojnameyeke hefteyî ya giştî û serbixwe ye ku li Silêmaniyê dest bi xebata rojnamegeriyê kiriye.




http://www.kurdistanreport.com/
http://www.beyani.com/

**Berhemeke Nû**

# Dadkirina Bi Helwesta Jinê!




Bi boneya Roja Cîhanî ya Jinan, nivîskara Kurd, Evîn Çîçek, careke din pênûsa xwe da xebitandin û berhemeke nû afirand. Pirtûka Evîn Xanimê ya nû bi navê **Dadkirina Bi Helwesta Jinê**(Kadinca Yargilama!), di 544 rûpelan de, ji aliyê Weşanên Pêrî hate çap kirin.

Demokrasî û wekhevî ji malê dest pê dike. Wekhevî ku li malê de nebe, li wê civakê jî nabe... Ev pirtûke berhema rizgariya jina ku ne bextewer e dide pêş. Pirtûk bi awayekî gelek berfireh rêbaz û bernama fêm kirina pirsgirêkên jin û mêran dide ber çavan û gelek dewlemend û balkêş e.

**Desteya Nivîskar ya Agirî** spas û dest saxiyê dibêje nivîskara hêja Evîn Çîçek û hêvî dike ku ew ji bo afirandina berhemên din di xebat û cehdê de be. Serkevtin bo te û hemû xwedî pênûsên Kurd.

